

# BUROYA KURDÎ

# ya Pêwendî û Agahdariyê

**Bultena agahdariyê N° 149 - Tebax 2017**

Quai aux Pierres de Taille (Arduinkaai) 11, 1000 Bruxelles - Tel. 02 219 80 60 – 047 897 882

www.kurdishbureau.be kurdishbureau@scarlet. www.facebook.com/bureaukurde

## ÇALAKIYÊN BUROYA KURDÎ

***TEBAX 2017***

### BEŞDARBÛNA ÇALAKIYÊN RÊXISTINÊN DIN

***03.08.2017: Mala Êzdiyên Beljîka***

Rêxistina Mala Êzdiyên Beljîka li ber avahiya "La Bourse" xwepêşandanek pêk anî, ji bo bîranîna nijadkuyiya Kurdên êzdî ji aliyê Dewleta Islamî li Şingalê, li Kurdistana Iraqê, di **03.08.2014** de.

Li jêr, bîranîneke kurt a vê nijadkujiyê (agahdariyên dirêjtir di bulten N° 113 de ne) :

***03.08.2014*****:** Dewleta Islamî erîşî Şingalê kir : 250.000 kes ber bi çiyayê Şingalê, Kurdistana Iraq, Sûriye û Tirkiyê reviyan. Ji wan, 10.000 li çiya, bê xwarin û vexwarin, asê man. 500 jin hatin birin Mûsilê, ji bo ku bên tecawuz kirin û firotin. Gelek zarok jî hatin birin. Nêzîkî 80 mêr hatin bi dar ve kirin (daleqandin) û 1.000 jî ser jê kirin yan bi gulleyan kuştin. Hemî xanî hatin talan kirin û têk birin (xerab kirin).

***20.08.2014:*** Dewleta Islamî êrîşî Koço, li nêzîkî Şingalê, kir. 600 mêr hatin kuştin û nêzîkî 1.000 jin û zarok hatin birin Til Eferê, li nêzîkî Mûsilê.

***25.08.2014:*** U.N.ê daxuyand (îlan kir) ku Dewleta Islamî 670 girtî li zîndana Badûşê, li nêzîkî Mûsilê, kuştin. Wê ev qirkirin "Tawana Li Dijî Mirovahiyê" bi nav kir.

# NÛÇE JI KURDISTANÊ

## KURDISTANA TIRKIYÊ

### DÛMAHÎKA ŞERRÊ LEŞKERÊ TIRKÎ Û PKKê

***<u>Amed (Diyarbekir)</u>***

Bombeyek li ser karwaneke leşkerî li gundê Xosorê, li bajarokê Licê, yê girêdayî Amedê, teqiya. 2 serbaz (esker) hatin kuştin û yek jî birîndar bû. Tevgera leşerî li vê navçeyê xurttir bû.



*<u>(rudaw.net, 01.08.2017)</u>*

Her du taxên Elî Paşa û Lalebegê, yên Surê, ji aliyê hêzên ewlehiyê (emniyyet) yên tirkî hatin dorpêç kirin û rûniştevanên wan hatin neçar (mecbûr) kirin ku jê derkevin. Ji berê, 80% ji van rûniştevanan hati bûn neçar kirin ku biçin (li bultenên me yên berê binêre). Ev yek bi biryara encumena tirkî ya wezîran.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

***Çewlik (Bingöl)***
Pevçûn di navbera PKK û leşkerê tirkî de li gundekî bajarokê Dara Hênê (Genç), li parêzgeha Çewlikê (Bingöl), bû. Serbazek hat kuştin û yek jî birîndar bû. Tevgerên leşkerî xurttir bûn.
*(rudaw.net, 10.08.2017)*

***Kurdistana Iraqê***
***Di 11 Tebax 2017 de***, firokeyên tirkî navçeya Biradostê, çiyayê Xakurkê, Mixazî, Deraw û çêrgehên Sinênê bombe kirin. Rez û daristan hatin şewitandin. Lê tukes ne mir.
*(rudaw.net, 11.08.2017)*

***Di 23 Tebax de***, bi şev, firokeyên tirkî gundên Lêlkan, Xelîfan, Gerûyî û Kewertê, û çiyayên Dîl û Xakurkê, li nêzîkî bajarokê Sîdekanê, yê navçeya Biradostê, bombe kirin. Tukes ne emir, lê zararên maddî bûn.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

***Dersîm***
Pevçûn li gunde Çiçekli bûn. 3 serbazên tirk birîndar bûn. Tevger li navçeyê dajon (dewam dikin).
*(rudaw.net, 12.08.2017)*

***Êlih (Batman, girêdayî Dersîmê)***
***Di 12 Tebax de***, bombeyek li ser karwaneke leşkerî li bajarokê Qabilcewazê teqiya. 2 serbaz hatin kuştin. Tevgerên leşkerî li navçeyê dajon.
*(rudaw.net, 12.08.2017)*

***Şirnex (Şırnak)***
Pevçûn di navbera leşkerê tirkî û PKKê de, li navçeya Şirnexê, bûn. Serbazek hat kuştin. Şerr dajo.
*(rudaw.net, 16.08.2017)*

Parêzgarê Şirnexê daxuyand ku 3 karkerên avakirina riyan ji aliyê PKKê, li gundên Roboskî û Düğündağ û bajarokê Qilabanê, hatin kuştin. Heta nuha, PKKê tu daxuyanî (îlan) li ser vê babetê ne kir. Leşkerê tirkî dest bi tevgerekê kir.
*(rudaw.net, 28.08.2017)*

***Iskenderûn (Hatay)***
Piştî şerrên di navbera PKK û leşkerê tirkî de, li parêzgeha Hatayê (Iskenderûn, li nêzîkî sînorê Kurdistana Sûriyê), serbazek hat kuştin.
*(rudaw.net, 17.08.2017)*

**PENABERÊN ÊZDÎ LI NAV KAMPEKÊ**
***Di 01 Tebax 2017 de***, bi şev, berpirsiyarên kampa penaberan "AFAD", li nêzîkî Mîdyatê, navçeya Mêrdînê, 4 Kurdên êzdî (yezîdî) qewirandin û xwest ku 50'yên din jî derxînin.

***Di 02 Tebax de***, li ser vê bûyerê, Feleknas Uca, parlementera Amedê, ya partiya kurdî HDP, 8 pirs ji serokwezîrê tirk, Binali Yıldırım, re şandin. Piştî vê yekê, ev kes ji nuh de hatin xistin nav kampê.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

**QEDEXEYA HATÛÇÛNÊ LI KURDISTANÊ**
Rêxistina Mafên Mirov li Tirkiyê rapporek li ser qedexekirina hatûçûnê li taxa Surê, li Amedê (Diyarbekir), û li ciyên din ên Kurdistana Tirkiyê, weşand :

- Ji 2 salan de, qedexekirina hatûçûnê li 11 bajar û 45 bajarokan dajo (dewam dike) : Amed (Diyarbekir), Mêrdîn (Mardin), Colemêrg (Hakkari), Şirnex (Şırnak), Bedlîs (Bitlis), Çewlig (Bingöl), Mûş, Dersîm (Tünceli), Êlih (Batman), Xarpêt (Harput), Sêrt (Siirt).
*(rudaw.net, 20.08.2017)*

**BANGA RAWESTANDINA ŞERR JI PKKê RE**
Ramyarên (siyasî) kurd seredana wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, ji Kurdistana Iraqê re bi baldarî dişopînin (li jêr binêre). Parlementerê partiya kurdî HDP, Altan Tan, got ku ji bo ku rewş li Tirkiye û Kurdistana Tirkiyê asa (normal) bibe, divê ku PKK şerr rawestîne. Û wî got jî ku divê ku li Kurdistana Sûriyê pergaleke (système) pirpartiyî (pluraliste), weka li Kurdistana Iraqê, were bi cî kirin.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

**1.000 MAMOSTE TÊN SIRGÛN KIRIN**
Barroya Amedê, Rêxistina Mafên Mirov, Odeya Bijîjkan (doktor) û 2 rêxistinên din ên civaka sîvîl

daxuyaniyeke çapemeniyê kir, ji bo riswakirina (protêsto) sirgûnkirina (dûrxistin) nêzîkî 1.000 mamosteyên kurd, ji 7 navçeyên Kurdistanê, ji aliyê hukûmeta tirkî.
(rudaw.net, 30.08.2017)

# KURDISTANA IRAQÊ

## GIŞTPIRSÎ (RÊFÊRANDUM) LI SER SERXWEBÛNÊ

***Dengdan li Encumena Kerkûkê***
***Di 29 Tebax 2017 de***, encumena parêzgeha Kerkûkê deng da pejirandina (qebûlkirin) kirina giştpirsiyekê (referendum) li ser serxwebûna Kurdistanê, ku ewê di 25 Îlon 2017 de bibe : 24 deng "belê", 1 "na" (Eniya Tirkmenan), 2 bêalî (kesên serbixwe) (Kerkûk bi awakî fermî ne girêdayî Kurdistanê ye, lê piraniya rûniştevanên wê Kurd in. Buroya Kurdî).
*(rudaw.net, 29.08.2017)*

***Daxuyaniya serok Berzanî***
***Di 30 Tebax 2017 de***, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, rastî mamosteyên zanîngeha Hewlêrê, li ser giştpirsiya serxwebûna Kurdistanê, hat. Wî ji wan re got ku ev biryareke dîrokî û wêrek e û ku ewê giştpirsî neyê paş xistin.
*(rudaw.net, 30.08.2017)*

***Kurdên Feylî (şîî) ji Bexdadê tên qewirandin***
Ji dema daxuyandina giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê de, Kurdên feylî (şîî) ku li Bexdad û bajarên din ên iraqî dijîn ji malên xwe tên qewirandin û tên Kurdistanê.
*(rudaw.net, 06.08.2017)*

***Berteka (réaction) wezîrê iraqî yê pêtrolê***
***Di 06 Tebax de***, berpirsiyarê karên pêtrolê li hukûmeta iraqî, Kerîm Xettab Je'fer, daxuyaniyeke nivîskî kir û tê de ji Şirketa Pêtrola Bakur xwest ku nema pêtrola Kerkûkê bişîne Herêma Kurdistanê (Kerkûk hîn li derveyî sînorên fermî yên Kurdistanê ye).
*(rudaw.net, 06.08.2017)*

## DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ

***DIYALA***

***Pêşmergeyek tê kuştin***
Bombeyek li bajarokê Gulale teqiya. Pêşmergeyek hat kuştin.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

***GERMIYAN***

***Serokekî mezzin ê DAIŞê tê kuştin***
***Ji 16 heta 19 Tebaxê***, şerrekî tund li dijî şervanên Dewleta Islamî bû. 3 ji wan, ku yek "emîrekî" mezzin bû, hatin kuştin. Ê 2mîn erkê (wezîfe) jêkirina seriyan stendi bû û yê 3mîn ji navçeya Germiyanê bû.
*(rudaw.net, 19.08.2017)*

***KERKÛK***



***3 kuştî û 2 birîndar***
***Di 03 Tebax de***, bi şev, bombeyek li ser erebeyeke Pêşmergeyan, li nêzîkî gundê Tamûrê, yê bajarokê Daqûqê, teqiya. Efserek (zabit) û 2 Pêşmerge hatin kuştin û 2 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 04.08.2017)*

***Tevgereke polîsî ya mezzin***
***Di 17 Tebax 2017 de***, polîs û hêzên ewlehiyê yên Kerkûkê tevgereke fireh li gundên Baciwan û Çiraxê, ku ji demekê de bûne amancên Dewleta Islamî, kir. Wan tê de 25 kes ragirtin. Ji wan, 10 ji aliyê dadgehê hati bûn xwestin û 15 bê kartên nasnameyê bûn û li gundên Kerkûkê dijîn.
*(rudaw.net, 17.08.2017)*

***Şerr li Daqûqê***
***Di 23 Tebax de***, Dewleta Islamî ji 4 aliyan êrîşî Pêşmerge, li Daqûqê, kir. Piştî nîv demjimêr (saet) şerr, ew hat şkestin. Ji aliyê kurdî tu qurban ne bûn, lê jimara kuştî û birîndarên Dewleta Islamî hîn ne hatiye nasîn.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

*MÛSIL*

***Keçeke êzdî ya ji Şingalê tê rizgar kirin***
***Di 10 Tebax de***, keçeke cuhan a êzdî, ya 21 salî, ji Dewleta Islamî hat rizgar kirin û ewê bibe birin bal malbata wê li Duhokê. Berpirsiyarekî Nivîsgeha (buro) Rizgarkirina Kurdên Êzdî, Emîn Xelat, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku ev keç ji gundê Koço, yê Şingalê, ye.
*(rudaw.net, 10.08.2017)*

***17.000 penaber vegeriyan***
Wezîrê iraqî yê Koçbûnê, Derbaz Muhammed, daxuyand ku nivîsgeha wî pêşwaziya 17.000 penaberan kir. Ew vegeriyan bajarokên Hemdaniyye, Bertile, Başîk û Nemrûdê. Û wî got jî ku ev jimar, li gora ya tevayiya rûniştevanan, ne bilind e. Ev wezaret tecrube dike ku alîkariya gelekên din bike ku vegerin. Jimareke mezzin ji rûniştevanên deşta Nînewa û Mûsilê li nav kampan, li Kurdistana Iraqê, dijî.
*(rudaw.net, 19.08.2017)*

*AZADKIRINA TILEFERÊ*

***21 Kurdên êzdî tên rizgar kirin***
***Di 08 Tebax de***, di roja yekemîn a rizgarkirina Tileferê, bajarokekî Mûsilê, de, 2 zarokên kurd ên êzdî ji aliyê hêzên iraqî hatin rizgar kirin. Hîn tê de 600 keç û jin di nav destên Dewleta Islamî de hene. Tilefer li Bakurê Rojavaya Iraqê û li Rojavaya parêzgeha Nînewa ye. Ew ji 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hatiye dagîr (işgal) kirin. Di 20 Tebax 2017 de, serokwezîrê iraqî û fermandarê hêzên leşkerî yên iraqî tevgera rizgarkirina wê daxuyand.

Piştre, jineke êzdî û her du zarokên wê, tevî kesên din, ji bajarokê Eyaziyyê reviyan û xwe gihand eniyên Pêşmerge.

Ji dema rizgarkirina Tileferê de, 21 Kurdên êzdî hatine rizgar kirin.
*(rudaw.net, 20 û 30.08.2017)*

***50 DAIŞ tên ragirtin***
Hêzên ewlehiyê yên iraqî nêzîkî 50 şervanên Dewleta Islamî di navbera Zumar û Rebîe, bajarokên Tileferê de, ragirtin. Ew bi komên piçûk bûn û beşek ji wan dixwest ku biçe Tirkiye û Sûriyê. Piraniya wan Erebên iraqî û Tirkmenên Tileferê bûn. 3 Ewropî, ku yek ji wan brîtanî û du alman bûn, hebûn.

***26 DAIŞ xwe radest dikin***
26 şervanên Dewleta Islamî xwe radestî Pêşmerge kir. Heta nuha, hêzên leşkerê iraqî 17 gund ji DAIŞê rizgar kirin.
*(rudaw.net, 21.08.2017)*

***59 DAIŞ tên kuştin***
Di ***roja 3mîn*** a tevgera Tileferê de, hêzên ewlehiyê yên iraqî 59 şervanên Dewleta Islamî kuştin. Ev yek, bi alîkariya mîlîsên şîî yên iraqî, Heşdî Şe'bî.
*(rudaw.net, 23.08.2017)*

***Navendeke êlêktrîkê tê rizgar kirin***
***Di 25 Tebax de***, polisê iraqî û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî navenda êlêktrîkê ya taxa Seed, li Bakurê Teleferê, stend.

***Navend û kele tên rizgar kirin***
***Di 26 Tebax de***, leşkerê iraqî navend û keleya dîrokî ya Tileferê rizgar kirin.
*(rudaw.net, 26.08.2017)*

***Rizgarkirina tam***
***Di 27 Tebax de***, Tilefer ji aliyê leşkerê iraqî u mîlîsên şîî bicarek hat rizgar kirin. Di 72 demjimêrên (saet) dawîn de, 130 şervanên Dewleta Islamî ji aliyê Pêşmerge li sînorê Tileferê hatin kuştin. Malbatên wan xwe radestî Pêşmerge kir.

Di 2010 de, jimara rûniştevanên Tileferê digihajt 281.000. Piraniya wan Tirkmen in û piraniya van Tirkmenan sunnî û hinek jî şîî ne. Di 2014 de, ew ket nav destên Dewleta Islamî.
*(rudaw.net, 27 û 29.08.2017)*

***Malbatên DAIŞê xwe radestî Pêşmerge dikin***
Nêzîkî 1.000 kesên ku ji Tileferê reviya bûn li sînorê gundê Sehl El-Malih xwe radestî Peşmerge kir. Ji wan, Endonîzî, Çînî, Rûsî, Almanî, Sûrî, Îranî, Tirkî, Azerî, Ereb, Kurd û Fille. Wan çîrokên xwe, ku yek ji yekê balkêştir, gotin. Piraniya wan jin û zarokên şervanên Dewleta Islamî ne. 35 şervanên DAIŞê, ku xwe xisti bû nav xelk, jî di nav

van penaberan de bun. 10 jinên kurd ên êzdî û yeke fille jî di nav wan de bûn.
*(rudaw.net, 29.08.2017)*

**Bajarokê Avgenî (Eyaziyye)**

***5 DAIŞ tên kuştin***
***Di 27 Tebax de***, bi şev, şervanên Dewleta Islamî li bajarokê Eyaziyyê, yê girêdayî Tileferê, li eniya Rojavaya çemmê Diclê êrîşî Pêşmerge kir : 5 DAIŞ hatin kuştin û 12 jî girtin.
*(rudaw.net, 28.08.2017)*

***4 keçên kurd ên êzdî direvin***
***Di 28 Tebax de***, serê sibê, 4 keçên cuhan ên êzdî li Eyaziyyê ji Dewleta Islamî reviyan û xwe gihand Pêşmerge. Gelek sîvîlên din ên vê navçeyê ber bi Pêşmerge reviyan.
*(rudaw.net, 28.08.2017)*

***8 keçên cuhan tên rizgar kirin***
Berpirsiyarê ewlehiya Rojavaya Diclê, Aştî Koçer, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku li Eyaziyyê 8 keçên cuhan, ku ji wan 7 Kurdên êzdî û 1 Fille, hatin rizgar kirin.
*(rudaw.net, 29.08.2017)*

***Rizgarkirina Eyaziyyê***
***Di 31 Tebax de***, şervanên şîî yên Heşdî Şe'bî daxuyand ku tevayiya bajarokê Eyaziyyê, bi piştgiriya leşkerê iraqî û bombekirinên hêzên hevbend, hat rizgar kirin û ku ala iraqî tê de hat bilind kirin. Nêzîkî 70 DAIŞ ber bi gunde Qeseb Raî reviyan. Hin ji wan tecrube kir ku xwe di nav Pêşmerge de biteqînin.
*(rudaw.net, 31.08.2017)*

***250 jin û zarokên DAIŞê xwe radest dikin***
***Di 31 Tebax de***, nêzîkî 250 jin û zarokên şervanên Dewleta Islamî xwe radestî Pêşmerge kir. Hin ji wan ji Çeçenistan, Asya û welatên din in.
*(rudaw.net, 31.08.2017)*

***ROJAVAYA DICLÊ***

***3 DAIŞ tên kuştin***
***Di 22 Tebax de***, bi şev, şervanên Dewleta Islamî ketin nav kemîneke hêzên Pêşmerge, li gundê Gul Muhammed, li eniya Rojavaya çemmê Diclê. 3 ji wan hatin kuştin.
*(rudaw.net, 23.08.2017)*

***Jinek xwe diteqîne***
Jinek xwe di nav penaberên Tilefrê, yên Avgenî (Eyaziye), de xwe teqand. Ji derveyî wê, 2 jin û zarokek hatin kuştin û 5 Pêşmerge birîndar bûn.
*(rudaw.net, 29.08.2017)*

***XURMATÛ***

***Pêşmergeyek tê kuştin***
***Di 29 Tebax de***, demjimêr 2 a serê sibê, Dewleta Islamî êrîşî 2 bingehên Pêşmerge, li Xurmatû, girêdayî Selaheddînê, kir. Pêşmergeyek hat kuştin. Piştî şerrekî mezzin, Daiş hat şikandin.

Piştî şikestina xwe li Mûsil û Teleferê, Dewleta Islamî li eniyên cihê êrîşî Pêşmerge dike.
*(rudaw.net, 29.08.2017)*

***ŞINGAL***

***25 DAIŞ tên kuştin***
Komeke Dewleta Islamî tecrube kir ku ji Tileferê, ji riya Şingalê, bireve Sûriyê. Li wê derê, ew ket nav kemîna Pêşmerge. Di şerr de, 25 ji şervanên wê, ku ji wan "emîr" bû, hatin kuştin. Li ser belgeyên nasnameyên wan, Pêşmerge dît ku ew di navbera 19 û 55 salî de bûn.

Fermandarê Pêşmerge, Cemîl Casim, daxuyand ku 15 ji wan Tirkmenên Tileferê û yên din jî Erebên derdorên Mûsilê bûn.
*(rudaw.net, 30.08.2017)*

***PKK û Şîî li dijî Pêşmerge***
Berpirsiyarekî leşkerî yê Pêşmerge li Şingalê, Wehîd Bakozî, ji BasNews re daxuyand ku PKK û mîlîsên şîî yên Heşdî Şe'bî bi hev re kar dikin û tecrube dikin ku riya Şingalê ber bi Sûriyê vekin, ji bo ku karibin çekkan di navbera Sûriye û Iraqê de derbas bikin.
*(rudaw.net, 31.08.2017)*

***IRAQ : TIKRÎT***

***900 serbaz di goreke hevbeş de***
Fermandarê hêzên şîî yên leşkerî "Heşdî Şe'bî", Muîn Kazim, daxuyand ku laşên 750 serbazên (esker) iraqî, ku şerrê Dewleta Islamî dikir, di goreke hevbeş de, li Tirkrîte, hatin dîtin. Wî got jî ku 550 ji wan hati bûn dayîn malbatên wan, lê ku ewê li ADN'a 200'ên din were nêrîn. Û wî got jî ku berê du hefteyan, 150 laşên din hati bûn dîtin û ku

dibe ku tevayiya jimara hemî van laşan bigihîje 1000.

Tirkrît ji Hezîran 2014 de ji aliyê Dewleta Islamî hatiye çavdêrî kirin. Tê de bingeha leşkerî "Spyker", ku tê de 1.7000 hebûn, hebû.
*(rudaw.net, 07.08.2017)*

***BEXDAD***

***6 kuştî û 8 birîndar***
***Di 27 Tebax 2017 de***, du bombe li du ciyan teqiyan. Bi giştî, 6 kes hatin kuştin û 8 jî birîndar bûn.
*(rudaw.net, 27.08.2017)*

**3mîn SERSALIYA NIJADKUJIYA ŞINGALÊ**

***Encam***
***03. 08. 2017*** sersaliya 3mîn a Nijadkujiya Kurdên Êzdî li Şingalê, li Kurdistana Iraqê, ye. Wê rojê, di **2014** de, çekdarên Dewleta Islamî bi hezaran Kurdên êzdî kuşti bûn û bi hezaran jin, keç û zarokên wan revandi bûn.

Bi vê hincetê (munasebet), merasîmên bîranînê li Şingal û kampên penaberan bûn. Muxtarê Şingalê, Mehma Xelîl, ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku heta nuha 3.500 kes ji Dewleta Islamî hatin rizgar kirin, lê ku hîn jî 3.367 kesên din, ku piraniya wan keçên cuhan û zarok in, di nav destên wê de ne.

Lêger (chercheur) Dawûd Murad, ku lêgerînek li ser Kurdên êzdî dike, got ku wî nav, navnîşan û çîrokên nêzîkî 7.000 kesan tomar (qeyd) kirine.

Li jêr, çend jimar :

- 45 gorên hevbeş hatin dîtin.
- 68 gor ji aliyê Dewleta Islamî hatin teqandin.
- 380.000 kes bûn penaber.
- 100.000 kes çûn derveyî Kurdistanê.
- 427 zarok bê dê mane.
- 365 zarok dê û bavên xwe hunda kirine.
- 220 zarok di nav destên Dewleta Isalmî de ne.

Bi ser de jî, rappor jimarên hûr ên kesên ku li navçeyên cihê hunda bûn dide :

- 1.543 kes mirin.
- 1.947 hatin revandin yan hunda bûn.
- 3.446 kes hatin rizgar kirin.

***Merasîmeke fermî li Duhokê***
***Di 03 Tebax de***, bi hinceta vê sersaliya 3mîn, merasîmeke fermî ya bîranînê li Duhokê bû. Serokwezîrê Kurdistanê, Nêçîrvan Berzanî, tê de peyivî.
*(rudaw.net, 03.08.2017)*

***Daxuyaniya U.N.ê***
Encumena Lêgerînên U.N.ê li Sûriyê daxuyand ku 3 sal piştî vê nijadkujiyê, cihan hîn jî nikari bû nijadkujan ceza bike. Û wê got jî ku erkê (wacib) dewletan e ku pêwîstiyên Êzdiyan dabîn (te'mîn) bikin, ji bo ku heta nuha piraniya pirsên wan ne hatin çare kirin, kujer ne hatine ceza kirin, nijadkujî dajo (dewam dike), bi hezaran mêr û kurrên cuhan ên êzdî hunda bûne û 3.000 keç û jin li Sûriyê hatine êşkence û tecawuz kirin.
*(rudaw.net, 04.08.2017)*

**DAIŞ TECRUBE DIKE KU BERZANÎ BIKUJE**
Di hevpeyvîneke rojnameya erebî El-Şerq El-Ewset de, serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, got ku dema ku ew diçû eniyên şerr ên Pêşmerge, Dewleta Islamî çend caran tecrube kir ku wî bikuje, lê ew bi ser ne ket.
*(rudaw.net, 30.08.2017)*

**FÊRÊN AMERÎKÎ YÊN ISTIXBARATAN**
Ji bo cara yekemîn, efserên (zabit) amerîkî rahênana (tedrîb) 69 efserên Pêşmerge û berpirsiyarên bilind ên wezaretên Pêşmerge û ya hundir, di warê "istixbarat"ê de, kutah (xelas) kir.

Di merasîmê de, kapîtênê amerîkî John Antonio got ku hêzên navneteweyî yên hevbend hevkariya xwe li dijî Dewleta Islamî, di çarçeveya bernameya istixbaratan "Vocalis" de, dajon (dewam dikin).
*(rudaw.net, 27.08.2017)*

**RAHÊNERÊN ÎTALÎ**
98 Pêşmerge rahênaneke taybetî ji aliyê efserên îtalî û bawernameyên (diplômes) navneteweyî stendin.

Hêzên hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî rahênana Pêşmerge, di warên cihê de : şerrê kuçan, tevgerên istixbaratan, pûçkirina bombeyan, alîkariya lezgîn …, dikin.
*(rudaw.net, 31.08.2017)*

**SEREDANÊN KURDISTANÊ**

***Şandeke asûrî ya fille***

***Di 01 Tebax 2017 de***, sekreterê Tevgera Dêmokrat a Asûrî, Yûnadîm Yûsif Kena, tevî şandekê rastî serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, hat. Wan şerrê li dijî Dewleta Islamî, rewşa ramyariyî (siyasî) û ewlehiyî (emnî) li Iraqê û bûyerên dawîn ên ramyariyî li astên hundirî û navçeyî giftûgo kirin.

Şandê dilniya (te'kîd) kir ku Fille dibînin ku çarenivîsa (qeder) wan û ya Kurdan û pêkhateyên din ên Kurdistanê yek in, ji bo ku ew li Kurdistanê tên rûmet (hurmet) kirin û parastin.

Berzanî pêşniyar kir ku partiyên ramyariyî yên fille bicivin û li ser daxwaziyên xwe yên hevbeş li hev bikin, û piştre wan pêşkêşî hukûmeta Kurdistanê bikin.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

***U.N.***

***Di 02 Tebax de***, serok Berzanî pêşwaziya nimînendeyê (temsîlcî) U.N.ê (Rêxistina Neteweyên Yekbûyî) li Iraqê, Jan Kubis, kir. Wan rewşa giştî ya Iraqê û pêwendiyên nuha û yên pêşerojê di navbera Hewlêr û Bexdadê de giftûgo kirin. Kubis Berzanî li ser rappora Encumena Ewlehiyê ya U.N. li ser Iraqê agahdar kir.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

***Norvêj***

***Di 03 Tebax de***, balyoza Norvêjê li Iraqê, Cécile Brey, tevî şandekê, rastî serok Berzanî hat. Wê got ku welatê wê dixwaze ku pêwendiyên xwe yên mirovî û aborî bi Herêma Kurdistanê re xurttir bike. Û ew li ser rewşa Mûsilê û giştpirsiya serxwebûna Kurdistanê jî peyivî.
*(rudaw.net, 03.08.2017)*

***Amerîka***

***Di 22 Tebax de***, serok Berzanî pêşwaziya wezîrê amerîkî yê parastinê, James Mattis, kir. Pê re şandê taybetî yê serokê amerîkî ji bo hevbendiya navneteweyî li dijî Dewleta Islamî, Brett McGurk; balyozê amerîkî li Iraqê, Douglas Silliman, û jimareke berpirsiyar û rawêjkarên (şêwirmend) wezareta amerîkî ya parastinê hebûn.

Piştre, Berzanî daxuyaniyeke nivîskî li ser vê yekê kir. Wî tê de got ku wan rewşa nuha û pêşerojê ya şerrê li dijî têrrorîsmê giftûgo kir û ku rizgarkirina Mûsilê nayê têgeha (ma'na) ku şerr kutah (xelas) bûye. Mattis spasiya Pêşmergeyên mêrxas, ku jiyana xwe dikin qurban, kir û got ku bê wan ewê Dewleta Islamî nehata şikandin. Û ew li ser girîngiya hemahengiya (coordination) di navbera Kurdistan û Amerîka de li dijî dijminê xwe yê hevbeş peyivî.

Li ser giştpirsiya (referendum) li ser serxwebûna Kurdistanê, ku ewê di 25.09.2017 de bibe, Mattis got ku heyf e ku helwesta welatê wî ji ya Kurdistanê cihê be. Li gora Amerîka, dibe ku ev yek şerrê li dijî Dewleta Islamî girantir (hêdî) bike û pirsan (problêm) bi hukûmeta iraqî re derxîne. Loma, baştir dibe ku Kurdistan pê re giftûgo bike. Berzanî bersîva wî da û got ku li gel hemî tecrubeyên xwe yên di salên dirêj de, Kurdistan nikari bû pêwendiyên erênî (positif) bi Bexdadê re bike û ku ewê giştpirsî neyê paş xistin.
*(rudaw.net, 22.08.2017)*

***Tirkiye***

***Di 23 Tebax de***, wezîrê tirk ê karên derve, Mevlut Çavuşoğlu, çû seredana Bexdadê, û piştre çû Hewlêrê û tê de rastî serok Mesûd Berzanî hat.

Li Bexdadê, Çavuşoğlu rastî wezîrê iraqî yê karên derve, Ibrahîm Jaferî, hat. Piştre, wan konfêranseke çapemeniyê kir. Çavuşoğlu got ku ewê Tirkiye piştgiriya xwe ji Iraqê re, di şerrê li diji Dewleta Islamî de, bajo (dewam bike) û ku ewê her du welat ji bo derxistina PKKê ji axa Iraqî (çiyayên Kurdistana Iraqê) hevkariyê bikin.

Li Hewlêrê jî, piştî rasthatina bi serok Berzanî re, konfêraneke çapemeniyê bû. Berzanî sedemên pêkanîna giştpirsiyê li ser serxwebûna Kurdistanê gotin. Çavuşoğlu got ku ewê ev giştpirsî pêwendiyên bazarganiyî di navbera welatê wî û Kurdistanê de têk ne birin (xerab nekin).
*(rudaw.net, 23 û 24.08.2017)*

***Yekîtiya Ewropî***

***Di 24 Tebax de***, serok Mesûd Berzanî pêşwaziya balyozê (sefîr) Yekîtiya Ewropî li Iraqê, Patrick Simonnet, û şanda wî kir. Wan pêvajoya ramyariyî, giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê û pêwendiyên bi Bexdadê re giftûgo kirin. Simonnet got ku Yekîtiya Ewropî piştgiriya giştpirsiyê dike, lê ku divê ku ew bi hevkariya hukûmeta iraqî re be.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

**SEREDANÊN DERVE**

***Amerîka***
Pişti seredaneke 3 hefteyan (ji 12.07. heta 06.08.2017), şandeke leşkerî ya Iraq û Kurdistana Iraqê ji Washingtonê vegeriya. Gênêralê kurd Helgurd Hikmet ji ajansa Rûdawê re daxuyand ku wî ji berpirsiyarên amerîkî re got ku eger Kurdistan serxwebûna xwe îlan bike jî, ewê têkoşîna li dijî terrorê, weka hevbenda Amerîka û Iraqê, bajo.

Endamên iraqî yên vê şandê ne razî bûn ku Kurd di vê seredanê de li ser vê rêferandumê bipeyivin.
*(rudaw.net, 06.08.2017)*

***Japon***
***Di 08 Tebax 2017 de***, li bajarê Nagasaki Konfêransa Yekîtiya Şaredariyên Cihanê ji bo Aşîtiyê bû. Serokên şaredariyên Hewlêr û Halabca, û parlementerê Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK) li parlementa iraqî, Sîrwan Sîrînî, beşdarî wê bûn. Wan tê de xwest ku Şingal weka endama vê Yekîtiyê were hilbijartin. Berpirsiyarên konfêransê ev pêşniyar pejirand (qebûl kir) û got ku ewê vê yekê li konfêransa pêşerojê de bi cî bînin.

Di 2016 de, şaredariya Kobanî, li Kurdistana Sûriyê, weka endama vê Yekîtiyê hati bû hilbijartin.

Yekîtiya Şaredariyên Cihanê ji bo Aşîtiyê ji 7.000 şaredariyan bêtir ava bûye û her du salan carekê dicive. Ji Kurdistanê, Halabca û piştre Amed (Diyarbekir) bû bûn endamên wê.
*(rudaw.net, 10.08.2017)*

***Finlanda***
***Di 28 Tebax de***, bi vexwendina hukûmeta finlandî, şandeke wezareta hundir a Kurdistanê, bi serokatiya birêvebirê giştî yê polîsên parêzgeha Hewlêrê, çû Helsinki.

Şand rastî berpirsiyarên wezareta koçberiyê û rêxistina navneteweyî ya penaberan "IOM" hat. Piştre, ew çû seredana wezareta finlandî ya karên derve û parlementê.

Amanca vê seredanê hînbûna tecrubeya finlandî di warê ewlehiyê de bû, ji bo ku di dema pêkanîna giştpirsiya li ser serxwebûna Kurdistanê de jê kelk were girtin (istifade kirin).

Seroka parlementa finlandî, Maria Lohea, gelê kurd ji bo giştpirsiya li serxwebûna Kurdistanê pîroz kir.

Di şerrê li dijî Dewleta Islamî de, 100 efserên finlandî rahênana (tedrîb) hêzên Pêşmerge dikin.
*(rudaw.net, 30 û 31.08.2017)*

# KURDISTANA ÎRANÊ

## CÎGIRÊ SEROKÊ ÎRANÎ LI URMIYÊ
Cîgirê serokê îranî, Ishaq Cihangîrî, çû seredana Urmiyê û tê de rastî berpirsiyarên vê parêzgehê hat. Wî xwest ku kesên ji ol û gelên cihê beşdarî encumena wê bibin. Û ew li ser pirsa kolberiyê (qaçaxçîtî) ya sînorî û zuhabûna Gola Urmiyê jî peyivî.

Ev seredan encama gazinên cihê yên çalakvanên kurd ên vê parêzgehê bû : Li gel ku Kurd 60% ji rûniştevanên wê pêk tînin, bitenê 10 erkên (kar, wezîfe) girîng, ji 136, ji karmendên kurd re hatine dayîn. Ên din ji aliyê Azeriyan hatine stendin. Û li vê parêzgehê (wilayet) hindikayiyeke Asûriyên fille jî heye.
*(rudaw.net, 01.08.2017)*

## KURDEK LI SINÊ TÊ BI DAR VE KIRIN
***Di 08 Tebax 2017 de***, girtiyekî kurd, Murteza Rehmanî, li Sinê hat bi dar ve kirin (daleqandin). Ew bi kuştina 2 endmaên polîsê îranî (pasdar) hati bû tawanbar kirin.

Rehmanî ji 2011 de li zîndanê bû û bi endambûna partiya kurdî PJAKê hati bû tawanbar kirin. Vê partiyê ev yek inkar kir û got ku ji berê Rehmanî alîkariya pasdarên îranî kiri bû.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

## 2 KOLBER LI PÎRANŞAR Û MAKÛ TÊN KUŞTIN



Bi hezaran kolberên (barhilgir, qaçaxqî) kurd bazarganiyê li sînorê Kurdistana Îran û Iraqê dikin. Li Pînranşarê, polîsê îranî agir berda wan û yek ji wan, Celal Balan Muhammed, ji gundê Hucranê, kuşt. Kolberekî din, Mensûr Resûlî Azer, piştî teqîna mînekê, piyê xwe hunda kir.

Li Makû, li Kurdistanê, serbazan agir berda kolberekî 17 salî. Ew li nexweşxanê mir. Hêzên ewlehiyê barên ku hilgirti bûn stendin.
*(rudaw.net, 03 û 22.08.2017)*

## DI TÎRMEHÊ DE 20 KOLBER HATIN KUŞTIN Û BIRÎNDAR KIRIN

Rêxistina mafên mirov "Hengaw" rewşa li Kurdistana Îranê bi awayekî taybetî dişopîne. Wê daxuyand ku di Tîrmeh 2017 de, 9 kolberên kurd mirin : 8 ji aliyê leşkerê îranî hatin kuştin û yek jî ji çiya ket. Bi ser de jî, 10 ji aliyê vî leşkerî û mînekê birîndar bûn.

Vê rêxistinê got jî ku ev kolberên kuştî û birîndar ji parêzgeha Urmiyê, ji herêmên Serdeşt, Pîranşar, Şino, Selmas û Makû, û ji bajarê Pawe, yê parêzgeha Kirmanşahê, bûn.

Ji sedema rewşa xerab a aborî ya Kurdistana Îranê, rûniştevanên wê neçar (mecbûr) dibin ku vî karî bikin. Ew li ser pişta xwe barên di navbera 80 u 120 kg hildigirin, ji riyên çiyayî yên sînor derbas dibin û dibin amancên agirê ewlehiya îranî.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

## 2 PÊŞMERGE LI PIRANŞARÊ TÊN KUŞTIN

Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê (PDKÎ) daxuyand ku di şerrê ***06.08.2017 de***, 2 pêşmergeyên wê, Yaqûb Muradî û Hêmin Mewlanjad, li Serê Hewarî Şêxe, li navçeya Pîranşarê (Xanê), li parêzgeha Urmiyê, hatin kuştin. Bi ser de jî, 4 polîsên îranî (Pasdar) hatin kuştin û 6 jî birîndar bûn. Fermandarê pasdaran ev nûçe piştrast kir.
*(rudaw.net, 07.08.2017)*

## 4 KURD LI ŞINO TÊN RAGIRTIN

Hêzên ewlehiyê yên îranî 2 kes li gundê Sînganê, yê bajarê Şino, li Kurdistanê, ragirtin, bê ku sedema vê yekê bêjin. Bi ser de jî, wan 2 kesên din li vî bajarî ragirtin.
*(rudaw.net, 13.08.2017)*

## BOMBEKIRINA KURDISTANA IRAQÊ

Leşkerê îranî derdorên gundên bajarokê Hacî Umranê, yê girêdayî Hewlêrê, paytexta Kurdistana Iraqê, bombe kirin. Tu qurban ne bû, ji bo ku ji berê jî ev navçe hati bû bombe kirin û piraniya rûniştevanên wê reviya bûn. Amanca leşker ew e ku tê de şerrê Pêşmergeyên partiyên cihê yên Kurdistana Îranê bike.
*(rudaw.net, 17.08.2017)*

## KÊMBÛNA AV : GUND 10% VALA BÛNE

Di 5 salên dawîn de, jimara gundiyên Kurdistanê 10% kêm bû. Sedema vê yekê kêmbûna servîsan û zuhabûna kaniyên avî. Li parlementa îranî, parlementerên kurd ev ramyara (siyaset) hukûmetê rexne kir.

Li gora Navenda Serjimêriyên (statistiques) Îranê, di navbera 2012 û 2017 de, 10% ji rûniştevanên parêzgehên Kurdistanê ber bi bajaran koç bûne û sedema vê yekê jî kêmbûna av e.

Li parêzgeha Kirmanşahê, 135 gund bê ava vexwarinê ne û gundî ew bi tankêran vediguhêzin.

Li parêzgeha Loristanê, 70% ji kaniyên avî zuha bûne. Ev yek bû sedema koçbûna 40.000 gundiyan.

Li parêzgeha Sinê, berpirsiyar dibêjin ku dibe ku 600 gund vala bibin.

Li Kurdistana Îranê, parêzgehên Sine, Loristan û Urmiyê bi av dewlemendtirîn in. Lê hukûmeta îranî kaniyên wan ber bi parêzgehên din ên îranî vediguhêze û ev yek boraneke (krîz) avê li Kurdistanê derdixîne.

Tê bawer kirin ku ji sedema ava şor a Gola Urmiyê, 150 ji gundên wê vala bûn.
*(rudaw.net, 09 û 18.08.2017)*

**DÛRXISTINA AVA URMIYÊ**
Parlementerê kurd ê parlementa îranî, Celal Mahmûdzane, daxuyand ku hukûmeta îranî ava çemmê Cexetû, yê parêzgeha kurdî ya Urmiyê, ber bi parêzgeha farisî ya Tebrîzê dûr xist û ku ev yek boranek (krîz) di warê çandinê de derxist. Û wî got jî ku ewê parlement lêgerînek li ser vê pirsê bike û tecrube bike ku vê projeyê rawestîne.
*(rudaw.net, 23.08.2017)*

**"KOMELA" CARDIN RADIHÊJE ÇEKKAN**
Partiya kurdî Komela ji nuh de dest bi şerrê çekdarî li çiya, li sînorê Kurdistana Îran û Iraqê, kir. 3 partiyên din jî hene : Partî Dêmokratî Kurdistana Îranê (PDKÎ), Partî Dêmokratî Kurdistan (PDK) û Komeleya Şoreşger.

Fermandarê vê partiya Komela, Aram Muderisî, daxuyand ku ew dixwaze ku pêwendiyên wê bi partiyên din ên Kurdistanê re hebin. Vê partiyê şerrê xwe yê çekdarî di 1979 de dest pê kiri bû. Di 2007 de, ew ji Komeleya Şoreşger veqediya bû.
*(rudaw.net, 19.08.2017)*

**QEDEXEKIRINA XWEPÊŞANDANEKÊ**
***Di 29 Tebax 2017 de***, polîsê bajarê Sinê ne hişt ku komek li ber avahiya parêzgehê xwepêşandanekê bike. Xwepêşandiyan dixwest ku li dijî şewitandina avahiyekê ji aliyê hêzên ewlehiyê derkevin. Ev şewitandin bû bû sedema mirina karkerekî, birîndarbûna yekî din û ragirtina 7 kesan.
*(rudaw.net, 30.08.2017)*

## KURDISTANA SÛRIYÊ

**DÛMAHÎKA ŞERRÊ LI DIJÎ DEWLETA ISLAMÎ**

***REQQA***

***909 barhilgirên çekkan ên Amerîka***
Ji destpêka şerrê li dijî Dewleta Islamî li Reqqayê de, Amerîka 909 barhilgirên (kamyon) çekkan şandin şervanên kurd "YPG" û "HSD". Ev barhilgir ji Kurdistana Iraqê derbas bûn û piştre ji bajarê Hesîçê, li Kurdistana Sûriyê, derbas bûn.
*(rudaw.net, 01 û 08.08.2017)*

***53 "DAIŞ" tên kuştin***
Tevgera stendina bajarê Reqqa, paytexta Dewleta Islamî li Sûriyê (weka Mûsil li Iraqê), dajo (dewam dike). Bi giştî, Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), ku serokatiya wan şervanên kurd ên YPG (Yekîneyên Parastina Gel), yên partiya PYD (Partiya Yekîtiya Gelan), dikin, 53 şervanên Dewleta Islamî "Daiş" kuştin û bi dehan sîvîl rizgar kirin.
*(rudaw.net, 01 û 19.08.2017)*

***DAIŞÎ xwe radest dikin***
Berpirsiyarê buroya agahdariyê ya Hêzên Sûriya Dêmokratîk "HSD", Mustafa Balî, daxuyand ku gelek şervanên Dewleta Islamî xwe radest (teslîm) dikin û ku moralê wan gelek nizm e. Ên ku ji bajarê Reqqa ne bi sîvîlan re direvin.
*(rudaw.net, 18.08.2017)*

**RIYA HELEB-EFRÎN TÊ BIRRÎN**
***Di 31 Tîrmeh de***, leşkerê sûrî riya di navbera Heleb û Efrînê de, bê ku sedema vê yekê bêje, birrî. Ev rê dema ku hêzên kurdî "YPG" navçeya Şehba ji DAIŞê rizgar kiri bû hati bû vekirin.
*(rudaw.net, 01.08.2017)*

**PAYKIRINA PÊTROLÊ**
Berpirsiyarekî wezareta pêtrolê ya hukûmeta sûrî daxuyand ku pêtrola Rimêlanê, li navçeya kurdî ya Hesîçê, di navbera hukûmeta sûrî û PYD de hatiye pay kirin û ku mûçeyên (meaş) karkerên wê ji aliyê hukûmeta sûrî tên dayîn.

Vî berpirsiyarî ji ajansa Rûdawê re daxuyand jî ku PYD vê pêtrolê bi rê ve dibe (idare dike) û rojane rapporek ji hukûmeta sûrî re dişîne. Li jêr çend dane :

- 01.03.2013: YPG çavdêriya (control) pêtrola Rimêlanê kir.
- 50% ji karkerên şirketa pêtrola Rimêlanê Kurd in.
- Berê boranê (krîz), 170.000 bermîl pêtrol ji bîrên Rimêlanê dihatin derxistin.
- Piştî boranê, 80.000 bermîl tên derxistin.
- 20.000 bermîl li hundirê Kurdistana Sûriyê tên belav kirin.
- 20.000 bermîl tên şandin Kurdistana Iraqê.

*(avestakurd.net, 15.06.2017)*

**GUNDEK BI NAVÊ "JIN"**
5 rêxistinên girêdayî Birêvebiriya Xweser, a partiya kurdî PYD, dest bi avakirina gundekî bi navê "Jin", li navçeya Dirbêsiyyê, parêzgeha Cezîrê, li Kurdistana Sûriyê, kir. Ewê malbatên şehîdên têkoşîna li dijî Dewleta Islamî tê de bên bi cî kirin. Nuha, 30 malbat tê de bi cî bûne.

Ji berê, rêxistinên vê Birêvebiriya Xweser projeyeke ava vexwarinê ji bo 300 malbatan, li gundê Silbêhiyyê, yê girêdayî Girkê Legê, li parêzgeha Cezîrê, bi cî anî bû.
*(rudaw.net, 28.08.2017)*

**TIRKIYE 10 BARHILGIRÊN ÇEK DIŞÎNE EFRÎNÊ**
***Di 04 Tebax 2017 de***, bi şev, leşkerê tirkî karwaneke 6 barhilgirên (kamyon) çek şand sînorê Efrînê. Ev yek, piştî tecrubeya darbeya leşkerî ku li Istanbulê, di 15.07.2017 de, bû.

Li gora hin guwahên (şahid) cihî (mehellî) yên Efrîn û Şehbayê, beşek ji leşkerê tirkî ji sînor derbas bû û li Ezaz û Şehba bi cî bû, ji bo ku tê de tevgerên leşkerî li ser Efrîn û Şehba, bi hevkariya hêzên dijberiya sûrî, bike.
*(rudaw.net, 05.08.2017)*

Li gora mêdyayên tirkî, leşkerê tirkî cardin 10 barhilgirên çekkan şandin Kilisê, li nêzîkî Efrînê.
*(rudaw.net, 26.08.2017)*

**TIRKIYE DÎWAREKÎ 2mîn AVA DIKE**
Tirkiye dîwarekî 2mîn, ê 5 km, li dirêjayiya sînorê navçeya Efrînê, li nêzîkî gundê Sorkê û deşta Îdamê, yên bajarokê Reco, ava kir. Ew li Bakurê dîwarê pêşîn, ku wê ava kiri bû, ye. Her du dîwar di nav rezzên gundiyan de ne. Amanca vê yekê xurtkirina dorpêçkirina Efrînê ye.

Dirêjayiya sînorê di navbera Kurdistana Tirkiye û Sûriyê de 700 km e. Heta nuha, Tirkiye dîwar li ser 550 km ava kirine. Ev yek gelek zarar gihandin gundiyan. Rûniştevan nerazîbûna xwe bi xwepêşandanan nîşan didin.
*(rudaw.net, 09.08.2017)*

**LEŞKERÊ RÛSÎ LI EFRÎNÊ**
Li gora mêdya û hêzên nêzîkî YPG, ***di 28 Tebax de***, hêzeke leşkerê rûsî, bi pejirandina (qebûlkirin) Hêzên Sûriya Dêmokratîk (HSD), ket nav bajarokê Til Rifetê, yê navçeya Efrînê, ku ji aliyê HSD hatiye çavdêrî (kontrol) kirin. Amanca vê yekê rawestandina bombekirinên leşkerê tirkî û dijberiya sûrî ye.
*(rudaw.net, 28.08.2017)*

**2 JINÊN KURD LI TIRKIYÊ TÊN KUŞTIN**
Li Mersinê, li Tirkiyê, jinek ji Kurdistana Sûriyê, Eyşe Ne'san, 50 salî, û keça wê Efaf, 17 salî, bi kêran hatin kuştin û tilliyên wan hatin jêkirin, ji bo dizzîna hungulîskên wan. Ew ji gundê Zaara, yê bajarokê Bilbilê, yê girêdayî Efrînê, bûn.
*(avestakurd.net, 30.08.2017)*

**"PYD" LI DIJÎ KURDÊN DIN**

***Kobanî***
***Di 31 Tîrmeh 2017 de***, komeke rûgirtî (bi "mask"), ya bi navê Ciwanên Şoreşger, ket nav nivîsgeha (buro) partiya Yekîtî, nifir kirin û xwest ku ala kurdî were daxistin. Berpirsiyarê vê partiyê, Mûsa Kino, ji wan re got ku vê buroyê destûr ji servîsên ewlehiya partiya PYD, "Asayiş", stendiye. Lê van cuhanan jê re got ku ew ne girêdayî Asayiş, ne jî PYD, ne.
*(rudaw.net, 07.08.2017)*

***Qamişlî***
***Di 10 Tebax de***, hin xwendekaran li ber birêvebiriya perwerdeyê, ya PYD, xwe pêşan da, ji bo riswakirina (protêsto) qedexekirina dibistanên arizî (susûsî, privé).
*(rudaw.net, 10.08.2017)*

***Di 20 Tebax de***, Encumena Neteweyî ya Kurdî li Sûriyê "ENKS" civiya û bi hûrî li ser rewşa ne baş a endamên xwe, yên ku li zîndanên Birêvebiriya Xweser (a partiya PYD) in, peyivî.
*(rudaw.net, 20.08.2017)*

***Di 23 Tebax de***, nivîsgeha rêxistina bi navê "Melbenda Şehîd Silêman Adê", ya partiya kurdî Yekîtî, hat şewitandin. Wê daxuyand ku ev êrîş ji aliyê 4 endamên rêxistina Ciwanên Şoreşger hat kirin û ku wan 4 bombeyên molotov ji erebeyekê avêtin û reviyan. Partiya Yekîtî dibêje ku ev cuhan endamên PKKê ne. Serokê vê partiyê Ibrahîm Biro ye. Endamekî polîtburoya wê, Fuad Elîko, endamê şanda dijberiya sûrî, ku beşdar dibe giftûgoyên U.N.ê, li Jenêvê, ye.
*(rudaw.net, 24.08.2017)*

**PENVÇÛN DI NAVBERA "PYD" Û HÊZÊN FILLE DE**
***Di 31 Tebax 2017 de***, pevçûn di navbera hêzên ewlehiyê yên PYD, "Asayiş", û hêzên fille "Sotoro", ku girêdayî hukûmeta sûrî ne, li taxa fille ya bajarê Qamişlî, li Kurdistanê, bûn. Filleyek birîndar bû û hat birin nexweşxaneyê.

Par jî, pevçûn li vê taxê bû bûn û çend kes hati bûn kuştin û birîndar kirin.
*(rudaw.net, 31.08.2017)*

# NÛÇEYÊN NAVNETEWEYÎ

**RÛSYA**

***Civîna wezîrên rûsî, iraqî û îranî***
***Di 02 Tebax 2017 de***, şandê taybetî yê serokê rûsî ji bo karên Rojhilata Navîn, Mikhaël Bogdanov; alîkarê wezîrê karên derve yê Iranê, Hasan Cabirî Ansarî; hevkarê wezîrê iraqî yê karên derve, Nizar Xeyretullah, û balyozê (sefîr) Îranê li Rûsya, Mêhdî Senayî, li Mosko, li wezareta karên derve civiyan. Wan rewşa dawîn li navçeyê giftûgo kir û ew li ser Kurdistana Iraqê jî peyivîn.
*(rudaw.net, 02.08.2017)*

**ISRAÎL**

***Kurd gelekî mêrxas in***
Rojnameya israîlî "The Jerusalem Post" gotarek li ser giştpirsiya (référendum) serxwebûna Kurdistana Iraqê weşand. Rojnamevan Neville Teller tê de dibêje : *"Gelê kurd, ku jimara wî digihêje 30 milyonan, mezzintirîn gel li cihanê yê bê dewlet e. Ji hezaran salan de, Kurd, weka neteweyekî serbixwe û serbilind, li ser axa xwe, li dilê Rojhilata Navîn, dijîn. Li gel vegirtinan û êşên mezzin, wan kari bû çanda xwe biparêzin".*

Teller got jî ku piştî êrîşên Dewleta Islamî di Hezîran 2014 de, leşkerê iraqî hilweşiya û Peşmergeyên kurd kari bû sînorên Kurdistanê biparêzin.
*(rudaw.net, 12.08.2017)*

***Avakirina dewleteke kurdî pêwist e***
Serokwezîrê israîlî Benjamin Natanyahu bi 33 parlemenerên kongrêsa amerîkî re civiya û ji wan xwest ku piştgiriya serxwebûna Kurdistana Iraqê bikin. Wî got ku Kurdên Iraqê mêrxas û azad in, ku ew hevalên welatên rojavayî û Israîlê ne.
*(rudaw.net, 15.08.2017)*

**TIRKIYE Û ÎRAN**

***Civîn li Ankara***



Serokê leşkerê tirkî Hulusi Akara û hevkarê wî yê îranî Muhammad Huseyn Baqirî li Ankara civiyan.

Wan 3 xal giftûgo kirin: Têkoşîna li dijî komên têrrorîst, parastina sînoran û rewşa giştî ya ewlehiyê li navçeyê.
(rudaw.net, 16.08.2017)

**AMERÎKA**

***Felaketa Şingalê nayê ji bîr kirin***
Berdevka wezareta karên derve ya amerîkî, Heather Nauert, di daxuyaniyeke çapemeniyê de got ku Amerîka ji bo felaketa ku Kurdên êzdî, fille û şîî kişand gelek xemgîn e. Û wê got jî ku Amerîka Dewleta Islamî berpirsiyara van tawanan (cinayet) dibîne, ku ew dizane ku nêzîkî 40 gorên hevbeş li Şingalê hatin dîtin û ku ewê alîkariyeke 1.4 milyar doloran bide Iraqê, ji bo alîkarîkirina qurbanan.
(rudaw.net, 04.08.2017)

**LUBNAN, SÛRIYE Û IRAQ**

***"Daişî" ji Lubnanê tên veguhastin Suriyê***
***Di 29 Tebax 2017 de***, encumena ewlehiya Kurdistana Iraqê daxuyand ku ***di 27 Tebax de***, otobusên tijje çekdarên Dewleta Islamî ji Lubnanê ber bi Sûriyê, nêzîkî sînorê iraqî, hatin veguhastin. Ev yek, piştî lihevkirinekê di navbera Dewleta Islamî, partiya lubnanî ya desthilatê "Hizbullah" û hukûmeta sûrî de. Li hemberî vê yekê, divê ku Dewleta Islamî 9 serbazên (esker) lubnanî, ku di nav destê wê de ne, azad bike.
(rudaw.net, 30.08.2017)

# NÛÇEYÊN ÇANDÎ YÊN KURDÎ

**KORÊYA BAŞÛR**

***Nîşaneke zerîn ji werzişvanekî kurd re***




Hêmin Mehdî tenha werzişvanê (sportîf) ji Kurdistana Iraq û Iraqê ye ku beşdar bû Şampyona Cihanî ya Takwando, li Sêûl, li Koreya Başûr, ji bo kesên 30-49 salî. Wî tê de nîşaneke zêrîn stend. Di heman demê de, ala kurdî hat bilind kirin.
(rudaw.net, 01.08.2017)

**FRANSA**

***Wefata nivîskar Chris Kutchera***
Nivîskarê fransî yê navdar û hevalê Kurdan, Chris Kutchera, di 31. 07. 2017 de, di temenê 79 salan de, ji nexweşiya parkinson wefat kir. Ew yek ji navdartirîn lêger û nivîskarên ku li ser Rojhilata Navîn û Kurdan kar kir bû. Li ser pirsa kurdî, wî 5 pirtûk û bi dehan gotar, rappor û lêgerîn di rojnameyên mezzin de, weka Le Monde Diplomatique, The Middle East Magazine …, weşandin.

Kutchera li zanîngeha Sorbonê xwend û di 1960 de dest bi karê rojnamevaniyê li Guatemala dest pê kir. Ew çend caran çû seredana Kurdistana Iraqê û pirtûkek li ser wê, bi navê "Rêve d'Indépendance des Kurdes" (Xewna Serxwebûnê ya Kurdan), nivîsî.

Di 25 Nîsan 2013 de, Kutchera Nîşana Berzanî ji destê serokê Kurdistana Iraqê, Mesûd Berzanî, stend.

Li jêr, çend pirtûkên ku wî li ser Kurdan nivîsî bûn :

- Dîroka Kurdan di sedsalên 19 û 20 de.
- Pirtûka reş a Saddam Huseyn.
- Çîroka Dîroka Kurdistanê.
- Tevgera Neteweyî ya Kurdî û Hêviya Serxwebûnê.
- Xewna Dîn a Serxwebûnê.
- Kurdistan, Rêbereke Wêjeyî (rehbereke edebî).
- Geşta (gerr) dirêj a Kurdan. Berhevokeke hevpeyvînan li ser Kurdistanê di 40 salan de.

(rudaw.net, avestakurd.net, 04.08.2017)

**TIRKIYE - KURDISTAN**

***<u>Romanek li ser keçên êzdî</u>***

Nivîskar u hunermendê kurd Zulfu Livaneli romanek bi navê "Nebûna aşîtiyê" nivîsî. Ew ji aliyê nivîskarê kurd Ferhad Çomanî ji tirkî hat wergerandin kurdiya soranî (bi kurdî, navê romanê "Ne Aramî" ye). Ew li ser nijadkujiya Kurdên êzdî û hindikayiyên din li Rojhilata Navîn û derên din ên cihanê ye.

Roman çîroka ronjamevanekî kurd ji Mêrdînê, Kurdistana Tirkiyê, ku li Amerîka dijî, ye. Dema ku ew hîn dibe ku hevalê wî hat kuştin, vedigere Mêrdînê. Li wê derê, ew hebûna 3 keçên êzdî yên Şingalê, ku ji Dewleta Islamî hatine rizgar kirin û li kampeke penaberan li nêzîkî Mêrdînê hatine bi cî kirin, dibîne.

*<u>(rudaw.net, 07.08.2017)</u>*

***<u>Muzîkjenkî kurd û yekî laz li Istanbulê</u>***

Du muzîkjen, yekî kurd û yekî laz (hindikayiyek li Tirkiyê, li nêzîkî Deryayê Reş), li kuçeyên taxa Kadıköy, ya Istanbulê, dilîzin û cuhanên kurd û laz jî dîlanê dikin. Dema ku karmend karê xwe kutah (xelas) dikin û ji buyoyên xwe derdikevin, ew jî dikevin dîlanê.

*<u>(rudaw.net, 26.08.2017)</u>*

***<u>Ala kurdî li gundekî Amedê</u>***

Di 2014 de, gundekî geştyariyî (tûrîstîk), bi navê "Hêlîna Min", li bajarokê Çêrmûgê, yê girêdayî Amedê (Diyarbekir), li Kurdistana Tirkiyê, hat ava kirin. Ew li nêzîkî çiyayê Aşûkarê ye û bi ala kurdî pêşwaziya geştyaran (tûrîst) dike.

*<u>(rudaw.net, 30.08.2017)</u>*

**KATALONYA**

***<u>Şeqamek bi navê "Kurdistan"</u>***

Li bajarê Sabadelê, 20 km ji Barcelona, şeqameke (cadde, riyeke fireh) sereke bi navê "Kurdistan" heye. Ev nav di 28 Hezîran 2000 de lê hat kirin. 3 riyên din, ku digihêjin vê şeqamê, navên welatên ku serxwebûna xwe dixwazin li wan hatine kirin. Şeqamên din ên sereke navên weka Estonya, Hongarya, Lituania …, hilgirtine.

Şaredariya Sabadelê dibêje ku 40 milyon Kurd serxwebûna xwe dixwazin û nûçeyên li ser wan belav dike.

Nûçegihanê ajansa Rûdawê, Zinar Şîno, dibêje ku di 01 Teşrîn (meha 11) 2017 de, ewê Katalonya giştpirsiyek (referendum) li ser serxwebûna xwe ji Ispanya bike.

*<u>(rudaw.net, 08.08.2017)</u>*

**KURDISTANA IRAQÊ**

***<u>Cêjna Zerdeştiyan</u>***

Kurdên zerdeştî (ola kevnar a Kurdan) cêjna "Peyama Agir" li şkefta Qizkapanê, yek ji şkeftên kevnar ên navçeya Suleymaniyê, pîroz kir. Wan stran gotin û peyamên zerdeştî belav kirin.

Ev şkeft yek ji şkeftên dîrokî ye û tê de nivîsên (nîgar) cihê hene. Tê gotin ku gora Key Xusrew, yek ji şahên navdar ên Medan, tê de ye.

*<u>(rudaw.net, 12.08.2017)</u>*

**ALMANYA**

***<u>Fêstivaleke mezzin li ser Serxwebûna Kurdistanê</u>***



***Di 26 Tebax 2017 de***, li Kölne fêstivaleke mezzin li derve, bi sponsoriya ajansa Rûdawê, bû. Ev yek ji bo pîrozkirina serxwebûna Kurdistana Iraqê, piştî giştpirsiya (referendum) 25.09.2017, e. Nêzikî 10.000 kes, ji welatên cihê yên Ewropa, bi alên kurdî beşdarî wê bûn. Li ser podiumê (sahne), bi dehan hundermend û komên dîlanê li dû hevdu hatin û peyameke serokê Kurdistanê, Mesûd Berzanî, hat xwendin.

*<u>(rudaw.net, 26.08.2017)</u>*

***<u>Xwendekarek yekemîn e</u>***

Lîloz Umer, keçeke cuhan a 17 salî, ji Kurdistana Sûriyê ye. Ew ji 3 salan de, tevî malbata xwe, li Almanya, li Baunatalê dijî. Li dibistana Theodor-Hess-Schule, ew di fêra almanî de yekemîn derket.

Mêdya li ser vê biserketinê nivîsî. Ew dixwaze ku abor ("iqtisad", économie) li zanîngehê bixwîne.
*(rudaw.net, 15.08.2017)*

***Fêrên arizî (xusûsî)***

Beşên zanînên ramyariyî (siyasî) û agahdariyê, yên zanîngeha bajarê Hanovrê, dest bi fêrên arizî li ser rewşa Sûriye û Kurdistana Sûriyê kir. Cuhanên kurd ên Sûriyê û yên sûrî tê de agahdariyan li ser vî welatî didin.
*(rudaw.net, 25.08.2017)*

## KURDISTANA SÛRIYÊ

***Şêran : Gundek dibe bajarok***

Şêran gundekî gelek kevn ê deşta Sirûcê û Kobanî ye û bi bermayiyên (kevneşop, vestiges) xwe navdar e. Navê Şêran lê hatiye kirin, ji bo ku tê de peykerên (heykel) şêran hene. Ew ji du 2.000 salan de, ji dema Asûriyan, heye. Nuha ew bûye bajarok (qeza).

Hin bermayiyên Şêranê li muzexaneyên Louvre, li Parîsê, û Helebê, li Sûriyê, hene.
*(rudaw.net, 25.08.2017)*

***Nivîskarekî kurd : Konê Reş***




Nivîskarê kurd Konê Reşê, ji bajarê Qamişlî, 5 pirtûk nivîsîne. 3 bi kurdî û 2 bi erebî. Yek ji wan li ser malbata mîrî ya navdar Bedir Xan (sesdalên 19mîn û 20mîn), dîroka wê û pêwendiyên wê yên civakî, ye.

Wî bi giştî 20 pirtûk nivîsîne û gotar di gelek kovar û rojnameyên kurdî de weşandine. Babetên pirtûkan ziman, folklor u çanda gelê kurd in.

Konê Reş di 1953 de, li gundê Doda, li sînorê Kurdistana Tirkiye û Sûriyê, bûye.
*(rudaw.net, 27.08.2017)*

*Ev bulten bi 4 zimanan, kurdî, fransî, hollandî û ingilîzî tê weşandin û bi e.mail ji nêzîkî 2.000 navnîşanan re tê şandin. Ew bi kurdî û fransî ji aliyê Pervîn Cemîl tê nivîsîn û ji aliyê Jona Mustafa bo hollandî û Chirine Gerits bo ingilîzî tê wergerandin. Montaja wê ji aliyê Jona Mustafa tê kirin. Rênas Newrozî wê li ser CD'yan tomar (qeyd) dike û datîne ser facebook û malpera entêrnêtê, yên Buroya Kurdî. Ew li ser kaxiz jî tê çap kirin û danîn nav pirtûkxaneya Buroyê, ku tê de berhemên bi nêzîkî 10 zimanan hene.*

FÉDÉRATION WALLONIE-BRUXELLES

Vlaamse Gemeenschapscommissie Brussel